

## PDKÎ: Em hilbijartinên vê carê jî bi nerewa dizanin û baykot dikin

»»»» R:5






*Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

## Peyama Komîteya Nawendî ya PDKÎ bi boneya 70'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê

»»»» R:3

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (270) 20-01-2016 Buha (500) Tûmen*

## Adil Cobeyr terora Mîkonosê anî bîra rejîma Îranê






**Kurdistanmedia: Hefteyekê piştî vê ku Wezîrê Karê Derve ê Îranê di rojnameya New York Times de Erebistan bi piştgiriya ji tundrevên şerxwaz tometbar kir, hemkûfê wî yê Erebistanî jî bersiva wî da, û got ku welatê wî bûye goriyê terorîzmê ji aliyê piştgirên Îranê ve. Herwisa wî bas ji terorên zincîreyî ji aliyê rejîma Îranê ve, û bi taybetî terora Mîkonosê kir , û Îran wekî rejîmeke terorîstî bi nav kir.**

Li gora nûçegihaniyan Adil Cobeyr di mijara xwe de ku di heman rojnameyê de hate weşandin, nivîsand ku "Gelo Îran dikare biguhere? Û ew îdî'a anî ber bas ku Îran bedela rikeberiya digel îzolebûna xwe, ku bi xwe jî sebebkarê wê ye, bas ji piştgiriya Erebistanê ji terorîzmê dike, lê bixwe siyasetên metirsîdar ên mezinxwazane û tayifî û piştgiriya ji terorîzmê girtiye pêşiya xwe.

Navbirî tevî amajekirina bi serkevtina şoreşa sala 1979'an di Îranê de, û amadekirina Yasaya Bingehîn ku tê de Îran bas ji "şandina bo derve ya Şoreşa Îslamî" dike, gihaye vê encamê ku Îran di vê çarçoveyê de ye ku pişta Hizbullaha Lubnan, Hosiyan û milîşên tayifîxwaz li Îraqê de digre.

Cobeyr herwisa nivîsand: "Îran berpirsyarê bombedanîna sala 1983'an li Beyrûyê di nav binkeya Amerîkayiyan de bû. Îran berpirsyarê teqandina binkeya "Elxober" di Erebistanê di sala 1996'an û terora neyarên siyasî ên xwe di restorana Mîkonosê de bû. Herwisa ji sala 2003'an şûnda 1 hezar û sed kes ji hêzên Amerîkayî di Îraqê de ji aliyê hêzên piştgirên Îranê ve hatine kuştin".

Cobeyr herwisa rû li Îranê dibêje ku: "Em di nav vê rîzbendê de nînin, ku li ser rejîmên piştgirên terorîzmê hatiye amadekirin, lê Îran tê de ye.

Neteweya me bi sedema piştgiriya ji terorîzmê di nav rîzbenda tehrîmên navneteweyî de nîne, lê Îran heye. Berpirsyarên welatê me di nav vê rîzbendê de nînin, lê Îran heye. Ew berpirsyar yê me nebû ku di sala 2011'an de bi sedema darêtina pilana kuştina balyozê Eebistanê di Waşingtonê de ji aliyê dadgeha Federal ya New Yorkê ve 25 sal ceza jê re hate birîn, ew berpirsyar Îranî bû".

## PDKÎ û hikûmeta demokratîk

»»»» R:2




## Rewşa Bakûra Kurdistanê aloz e

»»»» R:6



## Terorîzma bê şerm

»»»» R:7



## Helbestvan Yûsivê Berazî di dilê me de dijî

»»»» R:10



Misrî Berzkar:

**"Em ketin ber kîmyabarana Helebçê, û rojeke pirr bi zehmet û giran bû".**

»»»» R:8



## Sergotar

### PDKÎ û hikûmeta demokratîk

**Kerîm Perwîzî**


کوردستان

حیزبی سەربەخویی واستقلالی کوردستان

Avakirina Komara Kurdistanê 70 salan berî niha cîhanek guherî ku berê Kurd tê de dihatin bişavtin, û deshilata faşîstî dixwast ku hebûna neteweyekê ji reh û rîşe de derxîne. Komara Kurdistanê çendîn biyavên siyasî kulturî û dîrokî û stratejîk û civaknasane hene, ku her yek ji wan hewcehiya wan bi xwendin û raveya cuda û taybet heye.

Di vê navberê de rola PDKÎ wekî avakerê vê komarê roleke yekalîker û pênaseker heye.

Yekalîker bi vê wateyê ku bi hebûna partiyeke modern û demokratîk egera avakirina hikûmeteke pêşkevtî û pirr ji şanazî wekî Komara kurdistanê gellek lawaz dibû. Pênaseyek e jî bi vê manayê ku her demekê bas ji hikûmeta Kurdistanê li sala 1946'an de tê kirin, bona nasandina vê hikûmetê dibe em hawara xwe bibin ber pênaseyan û pirogramên vê hizbê ku Komara Kurdistanê ava kir.

Pirsyarek ku tê hole ew e ku gelo hekî PDKÎ neba, û hekî hikûmete ferzî bihatina avakirin, wê hikûmeteke çawa bûya?

Herçend em nikarin hinek paramêtrên din danên û formeke ferzî bidin dîrokê, lê ezmûna neteweyên din nîşan daye, ku li amadenebûna partiyeke demokrat de hikûmeteke çawa tê avakirin.

Herçend ku PDKÎ bi sedema vê ku nû hatibû avakirin, nekarîbû şorr bibe nava tewahiya aliyên jiyana xelkê, û xelkê ji bernameyên xwe têbigehîne, lê di heyama 330 rojan de cîhanek ji şanaziyan afirand ku nivşên piştî Komara Kurdistanê wekî rêbazekê çav ji van karan dikin..

Dom R:3

## Wezîrê Karûbarê Stratejîk û Ewlehiya Navxweyî a Îsraîlê: "Îran bi ceribandina mûşekan berdewam biryarnameyên NY binpê dike".

**Kurdistanmedia: Piştî vê ku lihevkirinek di navbera Îran û Amerîka de li ser programa navikî çêbû, û Amerîkayê jî ragehand ku Îranê jî biryarên derheq programa navikî de bi başî cîbicî kirine, serkomarê Amerîka rastî rexneyên tund ên Komarîxwazan û hinek ji berpirsyarên payebilind ên Îsraîlê hat.**

Her di vê derheqê de, Can kirî Wezîrê Karê Derve ê Amerîkayê ragehand ku Amerîka wê 400 milyon Dolarê Îranê ku berî têkçûna têkiliyên wan, ji aliyê Amerîkayê ve dest bi ser de hatibû girtin, digel sûda (behra) wê azad dike.
Li gora ragehandina Wezareta Karê Derve ya Amerîkayê ew sûda ku di dema wan deh salan de hatiye ser van darayiyên bilokekirî, nêzî 1 milyard û 300 milyon Dolar e, ku digel wê pereyê bilokekirî, wê radestî Îranê bihê kirin.
Ew darayî berî vê ku têkiliyên Îran û Amerîkayê têk biçin, ji bo kirîna çek û cebilxaneyan bo Amerîkayê hatibûn şandin.

Herçend ku Obama serkomarê Amerîkayê derheq lihevkirina navikî bi Îranê re, bas ji darayiyên Îranê kir, lê pêdagirî kir ku çareserkirina hinek ji nakokiyên di navbera Îran û Amerîkayê de, nahê vê wateyê ku dewleta wî li derheq kiryarên din ên Îranê de, bê helwest be. Piştî biryara azadkirina pereyê bilokekirî ê Îranê ji aliyê Amerêkayê ve, Îsraîl yek ji wan welatan bû ku bertekên tund nîşan dan, û komarîxwazên Amerkayê jî pevguherîna girtiyan di navbera Îran û Amerîkayê de bi nîşaneya "lawaziyê" di hemberî Îranê de dane zanîn.
Di vê derheqê de Netanyaho ragehand ku: "Îran niha jî li pey bidestxistina çeka navikî de ye, û hêzên cîhanî dibe çalakiyên rejîma Îranê bi başî çavdêrî bikin, û Îsraîl jî di hemberî Îranê de, ji bo parastina ewlehiya welatê xwe, çi hewce be, wê encam bide". Wezîrê Karûbarê stratejîk û ewlehiay navxweyî a Îsraîlê jî got: "Îran bi ceribandina mûşekan berdewam biryarnameyên NY binpê dike, û berdewam e li ser piştgiriya leşkirî ji Hemas û Hizbullaha Lubnanê".

Piştî hilgirtina dorpêçên Amerîka û YE, Îran dikare cardin neft û gazê bişîne welatên Ewropî, û şîrketên Rojavayî jî, wê bikarin bi Îranê re danûstandinan bikin. Lê gellek ji çavdêrên siyasî li ser vê baweriyê ne ku ew lihevkirin ne tenê bandora xwe li ser baştirkirina rewşa aboriya xelkê welat tunabe, belku berevajî hem rewşa aboriya xelkê wê ber bi xirabiyê ve here, û hem jî Îran wê zêdetir destên wê vekirî bin bona destêwerdana di nava karûbarên welatên cîran û serkuta nerazîbûnên navxweyî de.

## Diya du şehîdên PDKÎ li Pîranşarê çû ser dilovaniya Xwedê

**Kurdistanmedia: Fatime Mewlanî diya du şehîdên PDKÎ li temenê 110 saliyê de li bajarê Pîranarê de çû ser dilovaniya xwe.**

Li gora nûçeya gihîştî bi malpera Kurdistanmedia, roja 26'ê Befranbarê Fatime Mewlanî keça Ebdullah, diya du şehîdên PDKÎ şehîdan Îbrahîm û Qadir Fer'anî xelkê Pîranşarê li temenê 110 saliyê de bi sedema nexweşiyê koça dawiyê kir.

Termê navbirî di nav girseya xelkê Pîranşarê de bi axê hate spartin.

Hêjayî basê ye ku Şehîd Îbrahîm sala 1358 (1979)'an di Serdeştê de piştî şerekî qehremanane li dijî hêzên rejîma Îranê şehîd bibû, û şehîd Qadir jî di şerekî giran di herêma Husên Awa




ya Mehabadê de şehîd bibû.

PDKÎ sersaxiyê dibêje xizm û kes û karên navbirî, û xwe di xema wan de şirîk û hevpar dizane.

# Peyama Komîteya Nawendî ya PDKÎ bi boneya 70'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê






330 rojên pirr tîrêj di dîroka Kurdan di Kurdistana Rojhilat de, bi destê komek tekoşeran û rêberê me yê zana hate tomarkirin. Ew 330 roj ne tenê hêla diyarîkirina di navbera pêş û paş vê bûyera girîng bû, belkû bû hêvinê ducarîpênasekirina neteweyekê û selmînerê îradeyeke girîng û pirr bu-hagiran û mirovî û neteweyî bû.

Di meha Rêbendana sala 1324 (meha yekem a sala 1946)'an rast 70 salî berî niha tevgera neteweyî ya Kurd, bi rêberiya rêkxiraweke modern û biroj bi pêşengiya pêşewayekî zana û cangorî, gihaye kopika xebatê di bajarê Kurdperwer ê Mehabadê de. Ji wê demê şûnda bi avakirna Komara Kurdistanê wê tevgerê kinceke nû li xwe kir, û encameke piraktîkî jê çûbû, û neteweya Kurd ji erdnîgariya Kul-turî û dîrokî ve hate nava erdnîgariya siyasî de, û bû xwediyê kiyaneke siyasî.

Roja 2'ê Rêbendana sala 1324 (22.01.1946)'an, di qada çarçira ya hertim çiraya rê, pêşewayê nemir banga avakirina dewleta Kurdistanê di guhê hemî xelkê cîhanê de xwend, û yên ku heyanî duh haşa ji hebûna neteweyekê bi navê neteweya Kurd dikirin, bi ragehandina dewleta Kurdî û avakirina kiyaneke siyasî bi navê Komara Kurdistanê heyrî man.

Di dîroka hevdem ya welatê Îranê a pirr ji stemkarî û haşakirinê de, bi taybetî piştî gihîştina şîpelên moder-nazisyonê bo herêmê, hinek ji bi nav rewşenbîrên ser bi neteweya Fars di Îranê de bîrdoziyên xwe yên şovînî wergirtin û kincê siyasî kirin ber wê de. Ew kincê siyasî piştre deshilata sekutkar ya Pehlewî jê çêbû, û bû bingeha helandina neteweyên din, û cudahiyên neteweyî û çandî di Îranê de danî.

Di rastî de welat kavil kirin, ku pêştir hekî stemkarî tê de hebû, aliyê kêm înkar û haşakirin tê de nebû, li ser vî welatê kawil, neteweyeke destçêkirî bi navê neteweya Îranê bi zora zor-dariyê li ser kaxezê ava kir, û li ser erdê heyî, di pêxema avakirina netew-eyeke wehmî de, xwîna bi hezaran xortên neteweyên xeyrî Fars ên Îranê rijandin û kumê pehlewantiyê bi zorî dane serê xelkê.

Di rewşeke bi vî awayî ya bişavtina neteweyan de ye ku Komara Kurd-istanê ji dayîk dibe, û bi vî rengî neteweya Kurd dengê xwe derdixîne, û rû li hemî gelên Îranê û deshilat-darên Îranê ên nawendakincî dibêje ku stemkarî û kuştar û qirkirin, netew-eya Kurd û tevgera wê naxe qedeman, û neteweyek ku amade be di pêxema armancên xwe de qurbaniyan bide, ne tenê nahê jinavbirin, û nahê bişavtin, belku stemkariya stemkaran, mukim-tir û li ser daxwaziyên xwe pêdagirtir dike, û li derfeteke baş ya dîrokî de, tevgera wê vegeşînek zêdetir bi xwe ve dibîne, û qonaxekê ji derbazbûyî zêdetir diçe pêş û heya asta avakirina dewleta taybetî ya xwe hildikêşe.

Dema ku Komara Kurdistanê hate avakirin, wê demê welatê Îranê li jêr dîktatoriya Rezaxan derbaz bibû, lê di bin çekmeya dagîrkariya hêzên hevalbendan de bi rê ve çû, û lewra deshilata ku di Tehranê de hebû, ber-hema berjewendiya hevpar a dagîrk-erên Îranê bû û nûneratiya îradeya biyanî dikir.

Ew arteşa serkutkar a ku Rezaxan ku wî ava kiribû û gellek jê hez dikir, nekarî tenê rojekê jî xwe di hem-berî êrîşa derve ragire, û herwekî pêşewayê nemir bas kir, arteşek bû ku tenê ji bo serkutkirina xelkê bê berevan cesûr bû, û di şerê rasteqîne de, pişt li dijmin kir, û rû li navxwe reviya. Di wê demê de seraserî Îranê di destên bîaniyan de bû, û di wê rewşê di Kurdistanê bi rêbertiya PDKÎ deshilata neteweyî û xwecihî ava kir. Di dewrana dagîrkirina Îranê de, tenê Kurdistan û hikûmeta cîranê wê, Azerbaycan îdareyeke xelkî û niştimanî tê de hatibû avakirin.

Komara Kurdistanê ku berhema xebat û cangorîtiya neteweya Kurd bû, di serdema xwe de ku Rojhilata Navîn di destên zordariya deshilatdaran û dagîrkariyê de dinaland, bû deshi-lateke taqane, li sertaserî herêmê de, jiber ku take deshilata demokratîk bû ku piştgiriya xelkê dikir, û di nav şahî û xweşiya girseya gel de avakirina xwe ragehandibû.

Komara Kurdistanê ku ji bo Kur-dan mînakeke herî diyar û beçav û pratîkî bû, ji bo selimandina hebûna tevgereke neteweyî nîşaneya hebûna îradeyeke neteweyî bû, tenê di forma sembolîk de, û tenê wekî nav bo Kurd giring nine, belkû wekî deshilata sava û tevî kêmasiyên xwe, gellek karên girîng encamp da, û deskewtên mezin bi dest xistin, ku ji wê demê ve heya niha rênîşanderê xebata neteweya Kurd di hemî Beşên Kurdistanê de ne. Emê niha jî qala hinek ji kar û buha-giraniyên Komarê bikin:

Yekem: Komara Kurdistanê yekem hikûmeta Kurd di şêwaza Komarî de bû ku îşareyek e bo guhartineke dîrokî di îradeyeke siyasî ya Kurd û Kurdistanê de. Heya berî sala 1946'an Kurd di beşên Kurdistanê de li hinek ji kêliyên cuda ên dîrokî de, xwediyê deshilateke xwecihî bûye, û di en-cama hinek ji tevgeran de jî, hikûmeta xwecih ragehanadibûn. Lê hemû wan deshilatan forma mîrî û paşatî û kevneşopiyê hebûn, û di dawî mînakê de, hikûmeta Şêx Mehmûdê nemir li Silêmanî li şêwaza melik û paşayetî de hate ragehandin, lê di Mehabadê de ye ku bo yekem car Hikûmeta Kurdistanê di forma Komarî d ji dayîk dibe.

Duyem: Komara Kurdistanê di sala 1324'an de bo yekem car bû ku di dîroka xebata Kurd de li jêr îdare û birêvebiriya hizbeke demokrat û modern de dihate avakirin. Herçend ku PDKÎ bo karekî bi vî rengî kêm ezmûn bû û nû hatibû avakirin, lê hilgirtina vê pêngava dîrokî û mezin bû ezmûneke girîng ji bo birêvberiya îroyî û xelkî, û hebûna partiyeke demokratîk û îroyî hewcehiyeke haşahilnegir e da ku bikare nûnerê

**Doma sergotar**

Gellek hikûmet hebûn ku herçend di destpêkê de rewayiya şoreşgerî hebûn, lê piştre û li pêvajoya domandina deshi-latê de, li ber nebûna PDKÎ di deshilatdariyê de, ber bi dîktatoriyê ve çûne, bi awayekî ku hikûmetên berî wan hêviya wan ew bûye, ku xwazî hikûmeta berê maba baştir bû.

Di vir de em digihîjin vê encamê ku cuda ji rola PDKÎ, hebûna rêkxiraweke demokratîk ku dîtingeheke mirovî û modern û demokratîk bo jiyana civakî û siyasî ya xelkê hebin, hewcehiyeke haşahilnegir e, ku PDKÎ deftera şanaziyên wê stûrtir û girantir dike.

raštîn ê gel be, û dehsilateke herçend neteweyî û Kurdî jî be, berev štemkarî û zordarî gavan bavêje.

Sêyem: Komara Kurdištanê sembolên hewce bo pênasekirina neteweyî û bo nasîna îradeya siyasî ya neteweya Kurd berhem anî, ku niha jî digel de be, tevgera rašteqîne ya Kurd di hemî beşên Kurdištanê bo komkirina îradeyan li dewra tewereke bihêz mifahê jê dištînin. Ew hêma û sembol pêk tên ji alaya Kurdištanê, sirûda neteweyî, diyarîkirina navê cangoriyên gel, bi navê pêşmerge û zimanê Kudî bû zimanê fermî.



Çarem: Di Komara Kurdištanê de, Hêza pêşmergê Kurdištanê hate avakrin ku hewil hate dan ku hêza Pêşmere Kurdištan hêzek be ji bo parastina deskevt û hebûna neteweyî û di bin fermana hikûmetê de be, ne di bin fermana serokeşîr û kesayetiyan de.

Pêncem: Komara Kurdištanê bi himbêzeke vekirî Kurdên parên din ên Kurdištanê di bin per û baskên xwe de cih dane, û di ašta herî bilind de di îdarekirin û birêvebirina Komara Kurdištanê de cihê wan vekir, û bi vî awayî bi kiryar nîşan da ku herçend Kurdištan bi ser çend welatan de hatiye parvekirin, û Kurd li her beşeke Kurdištanê de çarenûsa wan ya cuda heye, lê di encamê de her yek netewe ye û yek xak e.

Şeşem: Komara Kurdištanê nekete dava şovînîzmê de, û digel gelê Tirk li Azerbaycanê de hevpeymanî pêk anî û rênîşander bû ku di cihê pêkanîna kêşe û arîşeyan di nav neteweyan de, çê dibe ku riya alîkarî û hevalbendiyê bigrin pêşiya xwe, da ku hemû neteweyên herêmê bi hev re kar bikin, bo pêşkevtin û vegeşînê.

Ew deshilata temen kurt mixabin ku di 26'ê Sermawezê ya sala 1325 (1946) 'an de, di hemberî êrîşa arteşa Pehlewî de xwe ranegirt, û bi deštên hêzên leşkerî ên Tehreanê û alîkariya hêzên biyanî herifî.

Komara Kurdištanê wekî hemû diyardeyeke mirovî û siyasî dûr nebû ji kêm û kasiyan û ji xalên wê yên lawaz em dikarin qala van xalên jêr bikin:

Komara Kurdištanê tenê beşeke kurt û berteng a Kurdištanê girt, û Komarê nekarî di warê pratîkê de, hemû xaka Krdištanê bi xwe ve bigre, û bixe bin siya deshilata xwe ya siyasî de.
Ew Komara di warê îdarekirinê de kêm temen bû, û kêm ezmûn bû, û kadrên şareza yên hewce ji bo hikûmet û birêveberiyê di deštên xwe de tunebûn.

Herçend ku hewil hatin dayîn bona avakirina hêzeke leşkerî ya neteweyî, lê li ber pêkhateya paşvemayî ya civaka Kurdewarî tê de serkevtî nebû, û hêza wê ya leşkerî her wekî hêza eşîrî mabû, û di dema tengaviyê de pişta xwe dane Komarê.

Bi hemû kêmasiyên xwe ve Komara Kurdištanê ew deshilata neteweyî ye di dîroka Kurd û Kurdištanê de, û qonaxeke zêrîn e, ku tê de hêviya neteweyekê ji riya îradeyeke şoreşgerî ve bû piratîk, û çarçove û štatûyeke siyasî lê ket, û ji wê demê şûnda heya niha cardin ser ji nû avakirina štatûyeke neteweyî bû armanca neteweya Kurd di hemî beşên Kurdistanê de.

Çê nabe ku bas ji Komaar Kurdištanê bê kirin lê cangorîtiya Kurdên beşên din ên Kurdištanê ku rû kirin rûgeha Mehabadê, bê jibîrkirin, û nehê baskirin. Ew hemû siyasî û çalakên Kurd li hemî beşên Kurdištanê de, û ew hemû nivîskar û rewşenbîr û ferhengiyên Kurd ku diçûne Mehabadê û xizmet bi tevgera neteweya Kurd dikirin, xizmet û zehmetên wan nahêne jibîrkirin, û cihê hurmetê ye.

Di vê navberê de bi taybetî dibe bas ji tekoşîna Barzaniyan bi rêberatiya Mela Mištefayê nemir bihê kirin, ku bi hemû awayekî di xizmeta Komaar Kurdištanê de bûn, û herwisa dibe yad û bîra efserên Kurd zindî bê ragirtin, ku ji Başûr ve hatibûn da ku xizmeta Hikûmeta Kurdî bikin, û piştre jî mixabin ji aliyê deshilatdarên Bexdayê ve hatin bidarvekirin.

Ji wê demê şûnda ku Komara Kurdištanê hate avakirin heyanî niha dijminên Kurd û bi taybetî deshilatdarên Tehranê çi di sedema paşatiyê de, û çi jî di serdema Komara Îslamî de, ew komar bi vê tawanbar kirin ku deštçêkirî û emrazê deštên Rûsiyan bû.

Berevajiyê wan tomet û boxtanên dijminan Komara Kurdištanê ne tenê deštçêkiriyê biyaniyan nenbû, belku Kurd îradeyeke neteweyî ji bo gihîştina bi mafên xwe hebû, û niha jî ew îrade heye, û di vê serdemê de li rewşa cîhanî û herêmî û derfeta siyasî mifaha bi cî wergirt û štatûya xwe ava kir.

Eva di demekê de ye ku her wê demê deshilata paşatiyê bi lihevkirina digel Rûsiyan û bi dana poana nefta Bakur bi wan selimand ku deshilateke ser bi biyaniyan û dagîrkeran e, û hemû poanekê dide bîhaniyan da ku deshilata wê ya serberedayî berdewam bike.

Niha jî di encama nêzîk bi çar dehikan hikûmeta serberedayî ya Komara Îslamiya Îranê, ji bo hemû aliyekî eşkere bûye ku deshilata dîktatoran li Tehranê de bona berdewamiya mana štemkariyên xwe, amade ye ku her cure poanekê bide biyaniyan.

Ger Komara Îslamiya Îranê serdemekê diruşma birîqedar a "Ne Şerqî, Ne Xerbî" dida, niha bi lihevkirina digel Rojava li ser dosiyeya navikî ya xwe, hem poana herî mezin dide Rojava, da ku rejîma wê berdewam be, û hem jî bi tewahî bûye paşko û jêrdeštê Rûsiyan di herêmê de, hem berjewendiyên Rûsiyê diparêze, û hem jî di nav Îranê de serwet û samana welat bi erzanî dixe nav bêrîka wan de, ku tenê bi vê armancê ku çend rojekan zêdetir deshilata wê ya biyom dom bike.

Niha piştî derbazbûna 70 salî bi ser avakirina Komara Kurdištanê de, em xortên Kurd li hemû beşên Kurdištanbê hem şanaziyê bi deshilateke bi vî rengî dikin, û hem jî wekî nasînereke neteweyî şanaziyê pê dikin, û hem jî hêvî û armancên bilind û mirovî û neteweyî ên xwe zindî radigrin, di pêxema bideštxiština wan de, emê berdewam bin li ser riya xebat û tekoşîn û cangorîtiyê.

Di dawiyê de, yad û bîranîna 70.emîn salvegera avakirina Komara Kurdištanê li hemû Kurdištaniyan li neteweya Kurd li hemû beşan û li hemû nuqteyeke cîhanê û li hemî pêşmergeyên Kurdištanê û li malbatên şehîdan û girtiyên siyasî pîroz dikin.

Bi hêviya cardin bideštvehatina hêvî û armancên avakerên Komara Kurdištanê

**PDKÎ**
**Komîteya Nawendî**
**30.10.1394**
**20.01.2016**

# PDKÎ: Em hilbijartinên vê carê jî bi nerewa dizanin û baykot dikin

**Kurdistanmedia: Deftera Siyasî ya Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê di daxûyaniyekê de hilbijartinên dahatî ên “Meclisa Şêvra Îslamî a Îranê” baykot dike.**

**Eva jî deqa daxûyaniyê ye:**

Rejîma Komara Îslamî a Îranê di 8’ê Reşemeya sala 1394’an a Rojî de, dixwaze ku gerra dehemîn a Meclisa bi nav Şêvra Îslamî û herweha gerra pêncemîn a Meclisa “Xobrêgan”ê bi rê ve bibe û, di vê pêxemê de, di rojên dawiya heyva Sermawezê de, dest avêtiye nivîsandina navên berbijêrên endametiya wan civatan. Rejîm weke berê di piroseyeke çend heyvî de, hem berî navnivîsandinê û hem jî piştî navnivîsandinan, û mijara ji fîltêrê derbazkirina berbijêran û heya dawiyê, ku perdeya bidawîhatina şanoya hilbijartinê û bidawîhatina dengdananê û destêwerdana dengên nava sindûqan digihîje encamê, lîstikekê bo cara çendemîn ducarî dike, bo handana xelkê bona amadebûn û pişikdariya di vê şanoyê de, û gerimkirina tendûra hilbijartinan, û mijar û basên curbicur dixe rojevê û bi çêkirina keş û hewayeke îhsasî di nava korr û kombûn û girûpên curbicur ên Îranê de, dixwazin xelkê tevî tirseke wisa berbirû bikin ku, bê xûyakirin di hilbijartina vê carê de renge hindek tişt û mijar bêne guhertin.

Herçend bo kesên şareza her di despêka hatine ser kar a Komara Îslamî de xûya bû, lê ezmûna çend dehikan a Komara Îslamî, tu nezelaliyek di holê de nehiştiye û bi rindî selimandiye ku, rejîm ji mijara hilbijartinê weke alavekê bona ducarîkirina berhemanîna meşrû’îyeta xwe ya çewaşekarane mifahê werdigire û, di rastî de hilbijartina demokratîk di bin siya deshilata Komara Îslamî de tuneye.

Ew kesê ku ji deshilata Komara Îslamî têgihîştibe, dizane ku rejîma han li ser bingeha Wilayeta Feqîh ku nûneratiya xelkê nake, û di rastî de xwe bi xwediyê xelkê dizane, hatiye avakirin. Deshilatek ku ji rêya zext û gîvaş a Spaha Pasdaran û dezgehên Îtila’atî û ji rêya destgirtin bi ser serwet û samana welat û parvekirina wan li gorî hewcehiyên xwe û herweha ji rêya ragehandinên berbilav ên ji televizyonan bigire heya Minberên mizgeftan, xwe disepîne û dirêjiyê bi man û hebûna xwe dide û, di rastî de eva ku çavkaniya deshilat û hikûmetê be, di organên “Êntisabî” (diyarîkirî) de hatine danîn, û hemû di bin fermana Weliyê Feqih de bi rê ve diçin, û li gorî yasaya ne rewa a Komara Îslamî, rêberê rejîmê xwediyê xelkê, û xwediyê hêz û xwediyê biryara bingehîn di vê pergalê de ye.

Bi vî awayî baskirina ji hilbijartinek rastîn di Îranê de, her di bingeh de şaş e, jiber ku nawendên deshilatê nakevin ber dengdanê û tenê postên ne girîng û bê deshilat in ku, di sinaryoyeke xapîner de, şanoya hilbijartinan bo bi rê ve dibin.

Di vê pêxemê de ye ku em şahidê vê yekê ne ku, hilbijartin bona serkomariyê di Îrana bin deshilata Komara Îslamî de, wê bi rê ve here, lê hemû serkomarên Îranê di dawiyê de bi vê encamê digihîjin ku li gorî gotina Xatemî “Xincî tedarokatçiyê hewcehiyên Rêberê Îranê, xwedî bandoreke berçav nebûne”.

Herweha hilbijartina “Meclisa Xobrêgan”ê jî wê bi rê ve here ku li gorî yasayên rejîmê jî, gerek çavedêriyê bi ser karûbarên rêberê Îranê de bike û tenanet rêber jî ji aliyê wan ve bê diyarîkirin. Lê hekî bi sivikî jî ne tenê bas ji rêberê Îranê bikin, belkî bas ji wan organan bikin ku biryara xwe ji rêber werdigirin, gef li wan tên xwerin, û têne bêdengkirin û, rojna rojekê nekevin hizra vê yekê de, ku piyê xwe ji berika xwe dirêjtir bikin.

Di nava dam û dezgehên rejîmê de, meclisa rejîmê ji hemû nawendên din kartonîtir e. Bi hemû awayekî piropagandeyan dikin ku di nava rejîmê de cinah û deste û taqimên curbicur hene, û wisa nîşan didin ku li ser korsiyên Meclisê rikeberiyê dikin, lê di rastî de Meclis gerek tenê bi dû kombûnên deste û taqimên cudacuda û herweha wergirtina poanên madî bo kesên curbicur e û, eva ku yasa û biryarên qedersaz in, rê bi wan nahê dayîn ku basê jê bikin û hekî rojekê, biqewime û yasayekê libekî cuda tevî daxwazên rêberê rejîmê derkeve holê, û meclisa han jî bixwaze vê biryarê bipejirîne, bo mînak weke gera şeşem a meclisê, bi fermanekê wê hemûyan bêdeng bikin, û serokê Meclisê jî wê bêje “Hukma Hikûmetî” hatiye û nabe careke din bas ji vê mijarê bê kirin!

Eva hemû sînorên deshilata vê nawenda bi nav hilbijartî yê nava rejîma Wilayeta Feqîh in, ku li gorî yasayên rejîmê ku li gorî nerîtên hikûmetî û li gorî pêvajoya deshilatdariyê, tu derfetek bo îradeyên cuda ji îradeya Weliyê Feqîh namîne, û her demekê jî hewce be, Spaha Pasdaran wê gefekê bixwe, û dengên xar careke din rast bikin, û “Besîret”a wan careke din vegêrin.




Xincî bêdeshilatbûna wan binyatan, hebûna “Şoraya Nigehban” ku di cihê hemû netewên Îranê de tevdigere, û biryarê dide, cixizeke din a bêdeshilatkirina binyatên bi nav hilbijartî ên Îrana bin deshilata Weliyê Feqîh de ne. Şoraya Nigehban li gorî yasayên ne rewa ên Komara Îslamî ya Îranê, xwediyê deshilata “Nezaretî Îstiswabî” ye ku dikare çavedêriya pêvajoya hilbijartinan bike, û him jî berbijêran diyarî bike, û him jî berwarê birêveçûna hilbijartinan diyarî bike û, di rastî de hilbijartin di Îranê de hilbijartina nûnerên xelkê nine, belkî diyarîkirina mohreyên pejirandî ên rejîmê ne, bo nava organên formalîte û berbiçav ên rejîmê.

Di pêvajoya hilbijartinê û piropagendeya berbijêrên cihê qebûlkirinê yên Şêvra Nobedar de jî, cardin dem û dezgehên leşkerî û ewlekarî û aborî û ragehandinî û mînbera mizgewtên di bin destên rejîmê de, dest bi kar dibin da ku di nav berbijêran de jî, yên ku zêdetir bi dilê rêberê rejîmê û dardestên rejîmê bin, di nava xelkê de kar ji wan re bihê kirin, û dengê çewtekirî yê xelkê ji bo wan be. Di encama dengdanê de jî cardin Şêvra Nobedar e ku dengan dihejmêre û tu çavdêrekî bêalî li wir tuneye, da ku aliyê kêm dengan bi serrastî bihejmêre, û ew jî wê bi dilê xwe, û her kesî bi hewce bizanin, wê wekî serkevtiyê vê şanogeriyê ragehînin.

Bi van sedeman e, ku pirsa hilbijartinê di Îranê de tu pîvereke azad û rastîn û demokratîk bi xwe ve nagire, û xelkê jî bawerî bi vê hilbijartinê tunînin, û rejîm di hemû bi nav hibiartinên xwe de digel kirîzekê bi navê kirîza piştkirina li sindûqan berbirû dibe, lewra jî di hemû qonaxên hilbijartinan de ku heya niha 31 hilbijartinên cur bi cur bi rê ve birine, berdewam dek û dolab gerandine, da ku xelk di hilbijartinan de beşdariyê bikin.

Dek û dolabên (pîlanên) rejîmê her ji belavkirina gotegotên curbicur ve ku wisa nîşan bidin ku vê carê cuda ye ji carên pêşîn dest pê dike, heya digihîje pêkanîna pêşbaziyeke nerastîn di nav xelkê de, ku girûp û tex û qat û selîqeyên cuda wisa bizanin ku eva nûnerê xwe yê rastîn hildijêrin, û hekî ew dest bi kar nebin, eva girûpeke din wê pişka wan ji xwe re bibe. Cuda ji vê yekê jî, bi hemû awayekî hewl didin ku bi tûjkirin û bi gefxwarin û timayîbirina wan, xelkê pal bidin ser sindûqên dengdanê.

Di vê dewreya bi nav hilbijartina meclisa Xibrigan û Meclisa Şêvra Îslamiya Îranê de, piştî têkşikestina wan di warê dosiyeya navikî de ku di hemberî Rojava de teslîm bûn, û serî tewandin, hem ji bo veşartin û peçavtina şikesta xwe, û

Dom R:6

# Rewşa Bakûrê Kurdistanê aloz e



Îdrîs Stwet

Heyamek e ku şer li Bakûra Kurdistanê di navbera hêzên PKK'ê û polîsên Turkiyê destpêkiriye û piroseya aşîtî di wî welatî de bandora xwe ji dest daye û hatiye hiloşandin. Welatê Turkiyê PKK'ê weke terorîst dihesibîne û bi hinceta şer tevî terorîzmê bajar û bajarok û gûndên Kurdakincî ên Bakûra Kurdistanê mîlîtarîze kiriye. Di rastî de ev şerê ku di Bakûra Kurdistanê de heye, şerê PKK'ê û Turk nine, belkî şerê du neteweyên Kurd û Turk e ku bê goma zirarmendê sereke neteweya belengaz ya Kurd e ku him ji aliyê malî û him jî di warê canî de xisarê dibîne û mala Kurdan kawil dibe.

Li gorî amarên rêkxistiyên mafên mirov, ji despêka şer heya niha nêzîkî 250 kes ji leşkirên Turk û 280 kes jî Gerîlayên PKK'ê hatîne kuştin û zêdetir ji 375 kes ji xelkê sivîl jî hatîne kuştin û 750 kes jî birîndar bûne û bi hezaran kes jî aware bûne.

Niha di welatê Turkiye de hêza leşkerî bi ser siyaseta wî welatî de zale û roj tevî rojê jî rewşa Bakûra Kurdistanê aloztir dibe û siyaset weke mikanîzm bo rêveberiya welat û bo çareseriya arîşeyan bê encam maye û niha berdewam hêzên leşkerî ên Turkiyr operasyonan li deverên Kurdakincî encam didin û heya niha çendîn tawanên mezin encam dane ku heke ev tawan li her welatek din hatiban encamdan, wê weke karesat hatiba hesibandin, lê mixabin tawanên ku derheq bi Kurdan tên encamdan, di asta cîhanî de kêmtirîn rengvedan hebûye.

Êrîşên leşkirî û mîltarîzekirina deverên Bakûra Kurdistanê bûye sedem ku xelkê Kurd tu hêviyek bi pêşeroja bihevrejiyanê tevî neteweya Turk nemîne.

Di vê navberê de ne desthilatdarên Turk û ne jî berpirsyarên PKK'ê xwe ji hember rewşa niha bi berpirs nizanin û tu aliyek jî hewilê nade bo çareseriya rewşa niha ya Bakûra Kurdistanê û bêgoman berpirsyarê sereke li hemberî vê rewşê, dewleta Turk e.

Şik di vê de nine ku bona çareseriya pirsa Kurd di Turkiyê de, gerek mafê Kurdan bê dayîn, lê gerek PKK jî weke bizaveke rizgarîxwaz guherînkariyê di siyasetên xwe de encam bide. Di rastî de PKK'ê tu nexşerêyek bo pêşeroja xwe nine û



her roj bi siyasetekî şaş derdikewe qada siyasetê û di vê navberê de jî, tenê gelê Kurd e ku baca siyasetên şaş ên PKK'ê dide.

PKK rojekî serbixweyiyê bo herçar parçên Kurdistanê dixwaze û roja din serbixweyiyî ret dike, rojekî şer radigehîne û roja din jî dirêje bi piroseya aşîtiyê dide, serbarê wan siyasetan jî, destêwerdanê di hemû beşên din ên Kurdistanê de dike û gelek caran jî bi awayek fermî dijberiyê partiyên din ên Kurdî dike.
Ev şerê ku niha di Bakûra Kurdistanê de heye beşek vedigere bo siyasetên şaş ên PKK'ê û beşeke din jî vedigere bo siyasetên dewletên dîktator ên herêmê û, mixabin welatên zilhêz ên cîhanê jî tu siyasetek zelal li hemberî Bekûrê Kurdistanê nine û, eva jî vedigere ser pêwendiyên bingehîn tevî wan welatan ku, xwediyê welat in û, dewletên bihêz ên cîhanê naxwazin sîstema coxrafiyayî ya Rojhelata Navîn biguherin û, eva jî bûye sedem ku neteweya Kurd weke alav bê bikaranîn.

Di rastî de berdewamiya arîşe û aloziyên Bakûra Kurdistanê ne bi qezencê gelê Kurd e û ne jî bi qezencê dewleta Turk e, belkî take rêya çareseriya pirsa Kurd, diyalog e û, bi şer û pevçûn û kuştina hevdu, tu yek ji wan du aliyan nagihîjin tu encamekê. yekxistina mala Kurdan rêçareya pirsgirêkên neteweya Kurd e û, Heya vê rojê ku bizava rizgarîxwaziya Kurd yekgirtî nebe, Kurd xwedî helwesta xwe nebe, xwedî pilan û pirojeya xwe nebe, wê di siyasetê de her wusa bimîne ku niha heye.

---

**Doma R:5**

hem jî bona bazargermiya hilbijartinê hinek gotegot (dengo, şayi'e) di nav xelkê de belav kirin, ku tu nîşaneyek ji rastiyê tê de nebû, jiber ku di rastiyê de tu tiştek li Îrana di bin deshilata Komara Îslamiya Îranê de ji riya hilbijartinê ve guherîn bi ser de nehat, û tu derfetek ji bo beşdariya rastîn û demokratîk a xelkê li diyarîkirina qedera xwe û welatê xwe de tuneye.
Biryarên çarenûssaz di van cihan de tê dayîn ku henekên xwe bi binyat û nawendên bi nav hilbijartinê dikin.
Di Kurdistanê de jî çendîn qat zêdetir ji cihên din, çewtekariyan dike, û ji bo rakêşana xelkê li ser sindûqên dengdanê ji tu pîlanekê xemsariyê nake, û di bajarên cur bi cur ên Kurdistanê de, berbijêrên rengbireng dadinê, da ku rikeberiyeke nerast di nava bîr û raya giştî a Kurdistanê de ava bike, mixabin hinek caran jî tê de serkevtinê bi dest dixe, û ji hemû îmkanên Spaha Pasdaran û dezgehên îstixbaratî û komîteya Îmdadê û Heraseta zankoyê û îdareyan û gefxwarina nanbirînê û …hwd mifahê werdigre, da ku xelkê Kurd li ser sinduqan amade bin.
Lê ya ku cihê giringîpêdanê ye, ew e ku digel hemû ew basên ku me li ser rewşa nawendên bi nav "întixabî" li Îranê de kirin, û digel hemû ezmûna derbazbûyî a rejîmê gelo heya niha tu guhertineke erênî di berjewendiya xelkê de hatiye kirin, û ji destên bi nav nûnerên meclisê tiştek hatiye, da ku xelk, dilê wan bi bi nav hilbijartina vê carê xweş be.

Ya ku zelal e ew e ku tiştek bi navê parleman û meclisek ku nîşana îradeya xelkê be tuneye, û tenê ew der cihê komcivînên endamên organ û nawendekê ne ku Şêvra Nobedar rê daye wan ku tê de beşdar bin, û tu deshilateke wan tuneye xeynî rewayîdana bi dîktatoriya Komara Îslamiya Îranê.

Di rewşeke bi vî rengî de, hekî tenê mo'icizeyek jî rû bide, û tewahiya meclisê bibe bi kesên şoreşger û welatparêz, û di xema mafê gel de bin, dîsan jî tu karek ji destên wan nahê, û hemû hewldanên wan wê bi hukm û biyarekî hikûmetî, wê betal bibin.

Li gora van bas û mijaran, û li gora vê derbazbûyiya ku hate baskirin, me jêve ye ku şanogeriya vê carê ya rejîmê jî wekî hemû şanogeriyên din, tu pîvanek û rengeke wê ya hilbijartineke demokratîk tuneye, û encama wê jî her çi be, di berjewendiya xelkê de nabe, û tu derfetek ji bo pêkanîna guherînkariyan di berjewendiya neteweya Kurd tê de tunabe. Lewra em hilbijartina vê carê jî nerast dizanin, û baykot dikin.

Em daxwazê ji xelkê hişyar û mafxwaz ê Îranê û bi taybetî neteweya Kurd ya azadîxwaz a Kurd dikin, ku di piroseya hilbijartina azad û demokratîk ya Komara Îslamî de beşdar nebin, û di roja dengdanê de li ser sindûqên amade nebin, û bedela dengdanê di piroseyeke weha de, di malên xwe de bimînin.

Daxwaza me ji hemû azadîxwazan û hemû tekoşerên demokrat ew e ku bi her şêweyekê ku dikarin û bi hemû hêz û şiyana xwe, ji bo eşkerekirina pîlanên rejîmê, û bona paşekêşekirina bi kesên ku xwe berbijar kirine, û herwisa bona tûjkirina xelkê welat bona neçûna wan li ser sindûqên dendanê kar bikin, û hewlê bidin da ku bo carek din jî bêjne vê rejîmê ku dek û dolabên wan ji xelkê re eşkere bûne, û betal û bê wate ne.

**Hiloşe rejîma dijî azadî a Komara Îslamî**
**Serkevtin ji gelên Îranê re**

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**20.10.1394**
**10.01.2016**

# Nerîna Lîderan



Demirtaş: **"Kurd naxwazin ji Tirkiyê cuda bibin".**



Netanyaho: **"Îran niha jî li pey bidestxistina çeka navikî de ye".**



Rûhanî: **"Hilgirtina dorpêçên aborî serkevtineke mezin e bo xelkê Îranê".**



Salih Muslim: **"Hekî Meclisa Sûriyeya Demokratîk nehê vexwandin bo Jinêv 3, em biryarên wê qebûl nakin".**

# Terorîzma bê şerm



**Kerîm Perwîzî**

Piştî bidarvekirina Şêx ê tundrew yê li dijî deshilata Si'ûdiyayê û 46 kesên din ku dewleta Erebistanê bi terorîst navê wan tîne ziman, rejîma Îranê bêdeng nema û bersiv da, û bi ew qasê nerihetî û kerb û kîna xwe helwêsta xwe nîşan da û, karbidestên rejîmê di hemû astan de, bi ew qasî tundrewane û tûjkerane ve, kiryara Erebistanê pirotesto kirin û gefa vê yekê xwarin ku, ev karê dewleta Erebistanê bê bersiv namîne û, tenanet Xamineyî û Spaha Pasdaran gefa lêxistin û jinavbirinê, ji dewleta Erebistanê xwarin.

Di emcama gef û gîvaşên han de bûn ku, Besîcî û Pasdar û hêzên ser bi Îtila'ata Spaha Pasdaran li Tehran û li Meşhedê bo careke din êrîş birin ser balyozxane û konsûlgeriya Erebistanê û, careke din rûçikê rastîn ê Komara Îslamî ya Îranê ji cîhanê re eşkere kirin, û selimandin ku, tevî cîhana pêşkevtî û mirovî ya îro de nateba ye û, tenê kultura şewitandin û gef û bê pirensîpî di nava wan de bihêz e.

Piştî vê bûyerê Erebistan û çend welatên din ên Erebî, têkiliyên xwe tevî Komara Îslamî qut kirin û yan jî anîn ser asta herî kêm û, civata ewlehî ya "NY" jî kiryara rejîma Tehranê bi tundî îdane kir. Di vir de bû ku Komara Îslamî hişyar bû û zanî ku her weke berê dûr ji her cure lojîk û mentiqekê bertek nîşan daye û, kiryarên wê yên tevdanîkarî bo wî bi xwe vegeriyane û, piştî wan hemû poanên ku dabûne cîhanê, û wan hemû paşvekêşiyanên ku derheq bi keysa etomî encam dan, da ku ji îzolebûna zêdetir rizgar bibe, niha jî careke din bi sedema bertek û gotinên dûr ji lojîk û serberedayî, pê diçe ku careke din bikeve nava goma îzolebûnê.

Ya ku di vê navberê de cihê mixabiniyê ye ew e ku hinek ji ragehgandinên rejîma Îranê û yên ku bi Spaha Pasdaran û dezgehên Îtila'atî nêzîk in, ji bo dilxweşkirina xwe û bi nav ji bo gefxwarin û biçûkkirin helwesta welatên Erebî, bas ji bûyera Mîkonosê dikin û bi ew qasî bê şermî ve bergiriyê ji terorîzma wê demê a xwe dikin, û xwe wekî serkevtî di wan bûyeran de dihesibînin.

Di sala 1371'an de li bajarê Bilrînê de terorîstên Komara Îslamiya Îranê di restorana bi navê Mîkonosê de, Dr. Şerefkendî û hevalên wî dane ber gulleyan û şehîd kirin,Piştî vê bûyera terorîstî dezgeha dadweriya Almanyayê kete pey biker û biryarderên vê karesata terorîstî û piştî pênc salan hukmê dîrokî ê xwe derkir, û Komara Îslamiya Îranê li asta herî bilind de wekî terorîst da nasandin.

Piştî vî hukmî welatên Ewropî yan pêwendiyên xwe bi rejîma Îranê re qut kirin, û yan jî asta têkiliyan anînine xwar, û piştre ku rejîma Îranê serî ji bo merc û daxwaziyên Rojava tewand, bi taybetî soz da ku êdî di Ewropayê de dest bi karên terorîstî neke, welatên Ewropî têkiliyên xwe bi Îranê re asayî



kirin.

Niha rejîma Îslamiya Îranê û dem û dezgehên wê ên Îtila'atî û terorîstî, cardin bas ji bûyerên naskirî bi Mîkonosê dikin, û bi bê şermiyeke tewaw ve hem xwe wekî serkevtî dihesibînin, û hem jî şanaziyê bi derbazbûyiya terorîstî a xwe dikin.
Di bûyera Mîkonosê de herçend ku PDKÎ û tevgera Kurd derbeke giran xwar, û dax û kesera şehîdbûna vî

rêberê mezin di dîrokê de her dimîne, lê hukmê dadgeha Mîkonosê hukmeke dîrokî bû, ku didadgeheke welatekî pêşkevtî de Komara Îslamiya Îranê di asta herî bilind de wekî terorîst dihate hesibandin. Piştre jî Komara Îslamî teslîmî daxwaziyên welatên Ewropî bû û şikestekem mezin di dîroka deshilata biyom ya Wilayeta Feqîh de bû.

Eva ku Spaha Pasdaran û dezgehên Îtila'atî û ragehandkarên ser bi wan li vê qonaxa hestiyar de bas ji ducarîbûna bûyera Mîkonosê dikin, tenê megre di bêşermiyeke tewaw de gefa teror û terorîstperweriyê bikin, û cardin ji cîhanê re biselimînin ku Komara Îslamiya Îranê, pişt û pena û çavkaniya terorîzmê ye, hekî ne, wê demê serkevtineke wisa bi dest nehîna, da ku niha bi ducarîkirinê şanaziyê bikin.

# Rewşa Rojhilata Kurdistanê aloz e

**Kurdistanmedia: Rewşa bajarên Rojhilata Kurdistanê û Îranê bi sedema retkirina kêrhatîbûna berbijêran aloz dibe.**

Li gora nûçegihaniya piştî vê ku ji aliyê Şêvra Nobedar û Wezareta Navxwe ve kêrhatîbûna hinek ji berbijêran hatiye retkirin, xelkê bajarên Îlam û Kirmaşanê û Xûzistanê dest bi lidarxistina meşên nerazîbûnê kirine.

Di vê derheqê de Nadir Qazîpûr berbijêrê Azerîziman yê Urmiyê bi sedema vê ku kêrhatîbûna wî hate retkirin, Azeriyan nerazîbûna xwe di hemberî vê biryara Şêvra Nobedar de eşkere kirin.



Li Kûhdeşta Loristanê de jî fermandarê Kûhdeştê wekî nerazîbûna di hemberî retkirina kêrhatîbûna berbijêran dev ji kar berda.

Li bajarê Sinê de jî rewş ew qas aloz bû û hêzên ewlehiya rejîmê xwe xistin rewşa amadebaşiyê de, û parêzgarê Sinê jî bilez ber bi Tehranê ve bi rê ket.

## Misrî Berzkar:

## “Min biryar da ez careke din bêm û tevlî refên PDKÎ bim, lê di rê de em ketin ber kîmyabarana Helebçê. Herçend em di wê rojê de derbaz bûn, lê rojeke pirr bi zehmet û giran bû”.



### H: Arif Vêlzî

Di nava netewa Kurd ê belengaz û bindest de, pir kêm in ev malbatên ku di rêya rizgariya netewe û axa xwe de, xortek xwe pêşkêşî baragehên azadiyê nekiribin, bi wateyeke din zaf in li her çar parên Kurdistanê, ev malbatên ku bi sedema evîndariya ji ax û nîştimanê re, miroveke xwe pêşkêşî rizgariya gelê xwe nekiribin.

Eva jî tê vê wateyê ku xevna rizgariya nîştiman, rast e rêyek pir dijwar e, lê evîndariya tak bi takên netewa Kurd jî, bi qasekî bihêz û bi îmane ku, rê herçiqas dijwar û bi zehmetî be, wê bê derbazkirin û herçiqas hewceyî gorîkirina egîd û mêrxas û şêrejinan be, wê bi bêhinfireyî bê dayîn.

Misrî Berzkar jî ye ji wan şêrejinên Kurdistanê ye ku bi gorîkirina birayeke xwe bi baregehên Azadiyê, di xebata pir ji xwîn û malwêraniya Kurdan de pişikdar bûye.

Misrî Berzkar keça Îsma’îl sala 1953’an (1332) li gundê “Derehecîc” a ser bi “Nodşe” ya ser bi bajarê Pawe hatiye dinê.

Misrî Berzkar derheq bi nasyariya xwe tevî pêşmerge û PDKÎ weha dibêje: “Bo cara yekemîn min di sala 1968’an (1347) bû ku navê pîroz û bilind a pêşmerge gudarî kir û tevî nasyar bûm”.

Misrî Berzkar herweha derheq bi jiyana xwe ya hevpar û tevlîbûna bi PDKÎ re weha dibêje: “ Sala 1969’an (1348) min jiyana hevpar tevî hevjînê xwe “Se’îd Meqrûzî” awa kir û, piştî çend salan û di sala 1979’an (1358) û di dema şoreşa gelên Îranê de, hevjînê min bûye pêşmerge û tevlî refên pêşmergên PDKÎ bû, ji wî çaxî ve ez jî tevî hevjînê xwe di nava karûbarên partiyê û refên pêşmerge dene û di vê mideha jiyana hevpar de jî, em xwediyê 6 zarokan in, 5 keç bi navên Ayşe, Ferîde, Ferîba, Ferzane û Rêzan û kurek e bi navên Refîq”.

Misrî Berzkar herweha piştî xebata bi salan di tevgera Kurdistanê de, çavnihêriya xwe ji PDKÎ û hevjîna xwe weha tîne ziman: “Serbarê vê ku min hemû jiyana xw di nava refên PDKÎ de derbaz kir û girîngtir ji hemû tiştek din, birayekî xwe bi navê “Sidîq Berzkar” ku di nava refên pêşmergên PDKÎ de şehîd ket, pêşkêşî baregehên azadî û armancên pîroz ên PDKÎ kir, lê niha jî çavnihêriya min ji PDKî ev e ku ji xebatê veneqete û hertim hewla serkewtinê bide û pişta pêşmergên û malbata şehîdan bigire û bona zadiya Kurdistanê ji tekoşînê berdewam be. Herweha çavnihêriya min ji hevjînê min ev e ku, ji xebata xwe ya pir ji serfirazî nesekine û heya dawiya jiyana xwe berdewam be.

Misrî Berzkar roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman û dibêje: “Bi sedema pêşmergatiyê, ez û Se’îdê Hevjînê min, 7 sal bû ji hevdu veqetiya bûn, piştî 7 salan em bi hevdu re şa bûn û careke din ji nû ve me jiyan domand û em ji wî çaxî ve bûne xwediyê 4 zarokên din, lewra ev serpêhatiya han min bas kir ku, roja em bi hevdû re şad bûn û careke din gehîşin hevdû, roja herî xweş a jiyana min e”.

Misrî Berzkar herweha roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman û dibêje: “Roja nexweş a jiyana min ew roj bû ku min biryar da ez careke din bêm û tevlî refên PDKÎ bim û, di rêde ketin ber kimyabarana Helebçê, em di wê rojê de derbaz bûn, lê rojeke pir bi zehmet û giran bû. Rojeke din jî di jiyana pêşmergatiya min de heye ku ez niha jî pê dilgiran û aciz im, ev jî roja şhîdketina rêberê navdarê gelê me şehîd Dr. Qasimlo bû”.





**Misrî Berzkar keça Îsma’îl sala 1953’an (1332) li gundê “Derehecîc” a ser bi “Nodşe” ya ser bi bajarê Pawe hatiye dinê.**



Misrî Berzkar rû li jin û keç û dayîkên Kurdistanê dike û bi vê peyamê dawiyê bi hevpeyvîna vê carê ya rojnameya Agirî tîne: “Ez daxwazê ji jin û keç û dayîkên Kurdistanê dikim ku, tu carî rêya xebata xwe ya pîroz bernedin û hertim hemû bihevre piştevanê hevjîn û xort û birayên xwe bin”.

## Di despêka sala 2016’an de zêdetir ji 52 kes di Îranê de hatine bidarvekirin

**Bidarvekirin di girtîgehên rejîma Îranê de hêj berdewam e û tenê ji despêka sala 2016’an de heya niha, pitir ji 52 kes di Îranê de hatine bidarvekirin.**

Li gor nûçeyên belavbûyî, beşek ji wan kesên ku di Îranê de hatîne darvekirin, bi tawana bazirganîkirin bi madeyên hişber û beşeke din beşek bi tawana qetil û beşek din ji bi tawana dijayetê tevî Xwedê hatîne darvekirin.

Li gor yasaya bingehîn a Komara Îslamî, cezaya bazirganîkirin bi madeyên hişber û qetla bizanebûn û dijberî tevî xwedê, bidarvekirine. Lê di vê navberê de rejîma Îranê bona jinavbirina dijber û neyarên xwe, wan li jêr navê bazirganîkirina bi madeyên hişber û dijayetî tevî Xwedê bidarve dike.

Eva di demekî de ye ku welatê Îranê piştî welatê Çîne, di pileya duhem a bidarvekirina xelkê xwe de ye di cîhanê de.



## Serhejmêriya telaqê li Îlamê %32 zêde bûye

**Kurdistanmedia: Tenê di 9 mehên derbazbûyî ên sala 1394’an a Rojî de, li Îlamê serhejmêriya telaqê %32 ber bi zêdebûnê ve çû ye.**

Cîgirê fermandarê rejîmê bas ji zêdebûna %32 ya telaqê kir û ragehand ku, di 9 heyvên derbazbûyî de 386 telaq ahtine encam dan, lê di heman dema sala derbazbûyî de,292 telaq hatine encamdan.

Mecîd Kakeyî li Îlamê herweha ragehand ku, di 9 heyvên derbazbûyî de 3 hezar û 430 zarok di Îlamê de jidayîk bûne û, eva jî li hember sala derbazbûyî 4.6 ber bi zêdebûnê ve çûye.

Tê gotin ku bi sedema hejarê û bêkarî û herweha zêdebûna diyardeyên civakî ênn weke madeyên hişber we, Îran yek ji welatên cîhanê ye ku rêjeya herî mezin a telaqê têde tê encam dan û eva jî di pêşerojê de cihê nîgeraniyê ye.




## Di sala 1394’an de 12 zarokên bin 18 saliyê de dawî bi jiyana xwe anîne



**Ajansa Kurdpa: Ji despêka sala 1394’an a Rojî heya niha, 12 qutabiyên qonaxa despêkî a xwendinê, dest avêtine xwekujiyê û dawî bi jiyana xwe anîne.**

Hate ragehandin ku tenê tenê di heyva Befranbara Îsal de du hewlên xwekujî li bajarê yezdê û yeke din jî li bajarê Tehranê hatiye dan û di encam de her sê zarokan canê xwe jidest daye.

Pisor liser vê baweriyê ne ku tirsa ji xwendingehê, dabezîna asta xwendinê û ketina ji hinek dersên xwendingehê û tirsa ji gazîkirina malbata xwendekaran bo xwendingehan û xemokî û kêşe û arîşeyên malbatî, sedemên herî sereke ên xwekujiya zarokan in.

## Perestarên Urmiyê çend meh in ku mûçe wernegirtine

**Ajansa Kurdpa: Perestraên Urmiyê eva çend mehin ku mûçeya xwe wernegirtine, û di vê derheqê de dest bi girevê kirine**.

Girûpeke ji perestaran di gotûbêja digel “ÎLNA”yê ragehandine ku eva şeş mehin ku mûçeya xwe wernegirtine, û ferqeke zêde jî di navbera perestarên şirketî û yên fermî de heye.

Her div ê derheqê deSerokê Komîsyona hiqûqî ya Şêvra Bilind a Saziya Nizama Perestariyê a welat bi nivîsandina nameyeke servekirî ji Rûhanî re, bas ji kêşe û arîşeyên perestaran kir. Di beşeke nameya navbirî de hatiye ku:“Beşa perestariya welat rojên pirr zehmet derbaz dike ew jî bi sedema bêexlaqiyên wezareta Tendirustiyê, û ji aliyekî din ve giringînedana we wekî serkomarê welat bi vê beşaê, bûye sedema bilindbûna dengê rexneyan û nerazîbûna perestaran, û ew niha di rewşeke pirr hestiyar û pirr ji nîgeraniyê de dijîn, û di warê bijîwa jiyana xwe de jî bi astengiyên micid re berbirû ne. Di bereberê roja perestar de, jiber ku riyên gotûbêj û alîkariyan di Wezareta Tendirustiyê de hatine daxistin, û zankoyên zanistên pizişkî alîkariya me nakin, em daxwazê dikin, ji bo çareserkirna pirsgirêkan û dana mafê perestaran û pêşîgirtina ji bêexlaqiyên di nav Wezareta Tendirutiyê de ji me re alîkar bin”. Giringînedana bi texa herî pispor di Îranê de û nedana çend mehan mûçeya wan, di demekê de ye ku rejîmê pere ji bo kirîna terorîstan û piştgiriya ji karên terorîstî û destêwerdana di nava karûbarên welatên herêmê de heye, û tu kêşeya pere di vî warî de tuneye” .



## Hunermendê navdarê kurd Kerîm Kaban çû ser dilovaniya xwe

**Hunermendê navdarê kurd Kerîm Kaban, di temenê 88 saliyê de jiyana xwe ji dest da.**

Hunermendê navdar ê kurd Kerîm Kaban, ku demeke dirêj bû nexweş bû û li nexweşxanê dihate dermankirin, jiyana xwe ji dest da.

Kerîm Kaban, sala 1927an li taxa Şêxanê ya bajarê Silêmaniyê ji dayîk bibû. Kaban yekemîn alboma xwe sala 1945ê tomar kir. Bi giştî 20 albomên wî hene.

Hunermend Kerîm Kaban bavê 6 zarokan bû; 3 kur 3 keç.



## HelbestvanYûsivê Berazî di dilê me de dijî



**Şeş sal ser mirina helbestvanê navdarê kurd Yûsivê Berazî derbas bûn. Helbestvanê ji Kobanî gelek awaz û gotin dane hunermendên navdar wek Mehmûd Ezîz Şakir, Seîd Gabarî û Mihemed Şêxo û çend kesên dîtir.**

Helbestvanê kurd Yûsivê Berazî ku kokên wî vedigerin navçeya Kobanî, di sala 1931ê de li gundê Tilcircê li derdora Helebê ji dayik bû û di sala 1956an de li bajarê Serê Kaniyê yê Rojavayê Kurdistanê bicî bû û heta dawiya jiyana xwe li wir jiya.

Yûsivê Berazî di xortaniya xwe de Seydayê Cegerxwîn nas kir û ket bin bandora wî, herwiha bi rêya Reşîdê Kurd fêrî rêzimana Kurdî bû û ji bilî Kurdî, bi Erebî, Farisî û Tirkî jî zanibû. Di xewna xwe de Feqiyê Teyran dibîne û li ser şîreta wî navê xwe dike Bêbuhar çimkî heta niha buhara gelê Kurd pêk nehatiye û Kurd negihîştine rizgarî û serxwebûna xwe.

Bêbuhar dengxweş û hunermend jî bû. Û wî gelek awaz û gotin dane hunermendên navdar wek Mehmûd Ezîz Şakir, Seîd Gabarî û Mihemed Şêxo û çend kesên dîtir. Bi taybetî helbesta wî Hebs û Zindan deng da ku wî di salên şêstî ji sedsala borî de di zindanên Sûriyê de û li jêr îşkence û lêdanê bi darikên şixatên li ser dîwarên zindanê nivîsandibû.

Bêbuhar li ser şêwaza klasîk dinivîsand û di helbestên xwe de behsa evînî, welatparêzî, hişyariya milet, êş û azarên gelê xwe û serxwebûna Kurdistanê dikir. Bêbuhar di navbera salên 1988 heta dema wefata xwe 5 dîwanên çapkirî li pey xwe hîştin bi navê: Zindan, Bang, Raperîn, Serxwebûn Pêşketin. Bêbuhar ewqasî dilsoz û wefadarê nivîs û pênsa xwe bû ku jib o çapkirina dîwaneke xwe xaniyê xwe firot.

Bêbuhar di 15.01.2009an de ji ber nexweşiyeke giran wefat kir û li bajarê Serê Kaniyê hate veşartin.

Ev helbest jî mînakeke ji helbestên evîndarî yên Bêbuharê nemir.
**Rûdaw**

Şêrîn tu cîrana min î
Armanc û nîşana min î

Rohnî û rewşana min î
Bax û gulistana min î

Çavên belek lêvên şekir
Dêma gulî bisk lê şe kir

Bejna te min lê meyze kir
Derya evînê ez çûm binî

Pêlan li ser pêlan veda
Derbêm ji bin qet keys neda

Vînê dilê min şex veda
Tu dil diyarî dijmin î

Mîhrê tu bik êdî gidî
Davan li min bes tim vedî

Min li dinya qet jîn nedî
Zû dilrevînî şewşen î

Sorgul biharê geş dibe
Cîhan hemû pê xweş dibe

Havîn li pey tê hişk dibe
Heyhat ji nişk da bê çinîn

Ez çûm gulistana gulan
Pê xweş kim derdan û kulan

Şevreş bihurî rohnî hila
Min çû ji xwe re gul çinî

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Xort ji bo ku diwestin dizewicin, keç jî ji bo ku meraq dikin dizewicin, dawiyê hemû jî poşman dibin.
**Oscar Wilde**

Mêrekî kerr û jineke kor, jinûmêrekî dilşa ne.
**Gotineke Danmarkî**

Jin berî ku bizewicin, mêr jî piştî ku dizewicin digirîn.
**Gotineke Polonî**

Evîn berbanga zewacê, zewac jî êvara evînê ye.
**De Finod**

Zewaca bêî hezkirin, mîna îbadetkirina bêî bawerî kirêt e.
**Çexov**

Felsefe di ser hemû huneran re ye.
**Eflatun**

Ji ku? Bi ku de? Ji bo çi? Çawa? Ev pirs hemû ji felsefê pêk tên.
**Joubert**

Di felsefê de ne gihîştina armancê, lê riya wê girîng e.
**Havelock Ellis**

Rexnegir her dibêjin, em ji nivîskaran tênagihîjin.
**Gelo ev sûcê nivîskaran e?**

# Zimanê Kurdî



**Beşa 7.** Dema xwendinê

## Navên hinek pêxwarinan

Penîr 

Zeytûn 

Mast 


To 

Dims 

Nîvişk 

Hêk 



**Beşa 6.** Dema axaftin û nivîsînê

**!** Hûn jî navên hinek xwarinên devera xwe bibêjin û binivîsin.

1. ..........................
2. ..........................
3. ..........................
4. ..........................
5. ..........................
6. ..........................
7. ..........................
8. ..........................
9. ..........................
10. ..........................




# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**1. Kolav**
- Serevraz kî dê vala bit, sernişîv kî dê tijî bit.
- Ser spiye, ne meleye, pê paniye ne deveye. (!)
- Demê sernişîv diken tijî dibit.

**2. Qazan, agir û hiskûk**
- Hudhude harbû, Reşwêl e lê siyarbû.
- Helhele har e, reşkele siyar e, dûvdirêjk xilmetkar e.

**3. Rê**
- Şûtka du ta, heta Bexda.
- Tiştekê dirêj e, sîber nîne.
- Diçit serê çiyay, nalivit.
- Ji vêrê heta Bexda/Helebê, hemî cangê du ta.
- Ji vêrê heta mala Obeydullay, hemî cangê qutay.

**4. Meqes**
- Min darekê 2 gulte, da nav lingêt babê te, li
wêra he bû qiçqiça da/diya te.
- 2 têrra, 2 vêrra, çilfindê, hay çilfindê.
- Hemzeko, di pişta xwe ve neko.
- Stûna 2 gulte, dana bin ritlêt babê te, bo çîzçîza deyka te.
- Heta tu tilêt xo nekeye di çavêt gurgî ra, mihê naxot.

**5. Telhe**
- Ser dês e, bin dês e, çeqil û meqil bi xirnês e.
- Tiştek min heye di rê da, yê sax hat pê da,
yê mirî, sax li erdê da. (* dav, telhe, xefik)

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (270)

